Bidestveanîna mafên neteweyî yên gelê Kurd di çarçoveya Îranek Demokratîk û Federalî de

Hejmar: 78
31'ê Çileya Pêşîn
Buha: 150 Tûmen

agiri

Rojnameya panzdehrojî ya siyasî, çandî û giştî

Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne

## Sersala We Pîroz Be

Sala 2007'an, bi hemû evraz û nişîv, xweşî û nexweşî û wd... derbaz bû û em di rojên yekem ên sala nû (2008) a Zayînî de ne. Bi vê boneyê em bi can û dil pîrozbahiyê ji hemû Mesîhiyên cîhan û Kurdistanê dikin. Bi hêviya salek tejî şahî, bextewerî û serkevtin.

**Desteya Weşana Agirî**
**01.01.2008**

Rêzdar Mistefa Hicrî, Di Hevpeyvînek Taybet Bi Agirî Re



2

12 Partiyên Kurd Û Kurdistanî Êrîşên Turkiyê Bo Ser Başûrê Kurdistanê Şermezar Kirin



4

PSK'ê Kongireya Xwe Ya 8'an Lidarxist




5

Gola Urmiyê Di Bin Gefa Hişikbûnê De



7

Nameya Kebûdvend Ji Bo Wijdanên Giştî, Xelkê Îranê Û Kurdistanê



8

Pergala Perwerdehiyê



9

# BÊNEZÎR BOTO GORIYA DEMOKRASIYÊ



**Cîhan di rojên dawiya sala 2007'an bi bûyereke terorîsît hate hejandin. Roja pêncşem 27.12.2007'an Serok Wezîra berê ya Pakistanê û Rêbera Partiya Gel a Pakistanê (PPP), Bênezîr Boto di êrîşeke terorîstî li bajarê Ravalpindî a wî welatî hate terorkirin.**

Boto weke yekemîn jinan siyasetvan a Pakistanî û yekemîn jin bû ku di welateke Îslamî de karî bû berpirsiyariya bilind a dewletê wekî Serok Wezîriyê bidest bixe û rêveberiyê bike. Bi mirina Boto cîhanê û nemaze Rojhilata Navîn kesayetiyeke alîgirê demokrasiyê ji dest da û bi çûna wê valahiyek mezin di tevgera demokrasîxwaziya vê devera cîhanê de û nemaze di welatê Pakistanê de pêk tê.

Li pey kuştina Bênezîr Boto, rewşa Pakistanê bi giştî aloz û tevlihev bûye. Ji ber vê bûyerê rewşa awarte li Pakistanê hatiye îlankirin.

**Rapora berfireh di R.3'an de**

## Sê Hêzên Sereke Yên Kurdistanê, Li Swêdê Li Hev Civiyan



Roja 23.12.2007'an, berpirsên sê hêzên sereke yên Kurdistanê anku PDK'ê, YNK'ê û PDK Îranê, li bajarê Orebiroya welatê Swêdê, li ser vexwendina hevalên Komîteya PDK Îranê li vî bajarî, li deftera Yekîtiya Kurdan li bajarê han li hev civiyan.

Di vê civînê de her sê aliyan li ser zirûfa niha ya Kurdistan û deverê, êrîşên dewleta Turkiyê bo ser axa Herêma Kurdistanê, bi hinceta hebûna PKK'ê axivîn û dîtin û nêrîn bi hev re guhertin.

Her sê aliyan di vê kombûnê de carek din yekhelwestî û yekîtiya xwe derheq wan pirsan û êrîşa dewleta Turkiyê bo ser Herêma Kurdistanê eşkere kirin.

Şandên beşdar di vê civînê de pêk hatibûn ji:

Ji aliyê Partiya Demokrat ya Kurdistanê, birêzan **Îdrîs Berwarî** û Kekê **Reşad**

Ji aliyê Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê, **Seîd Kwêstanî, Mihemed Ermexan, Aso Seyad, Rehîm Mistefapûr** û **Husên Azerî**

Ji aliyê Yekîtiya Nîştîmanî a Kurdistanê, birêzan **Salar** û **Ferhad Mihemedî** beşdarî civînê bûn.

## Gaz Li Bajarên Rebet Û Serdeştê Hate Qutkirin

Navenda Nûçeyan ya PDK Îranê da zanîn ku ji bervara 22.12.2007'an, heya niha gaza bajarên Rebet û Serdeştê hatiye qutkirin û her wiha kêmbûna nift û gazolê û giraniya wan di semsala zivistanê de ji bo xelkê bajarên han asteng pêk anîne.

Her wiha bi vê sedemê piraniya nanpêjxaneyên bajarê Rebetê ku bi gazê kar dikin, hatine daxistin. Hêjayî gotinê ye ku tevî destpêbûna Demsala Zivistanê Di Çend Deverên Kurdistanê De Gaz Hate Qutkirin û şewat kêm dest dikeve.

**Mistefa Hicrî:**

# "EM DİXWAZİN Jİ RÊYA ENDAMBÛN Dİ RÊXİSTİNÊN NAVNETEWEYÎ DE DENGÊ MAFXWAZİYA KURDAN BİGEHÎNİN GUHÊ XELKÊ CÎHANÊ"

PDK Îranê roja 04.12.2007'an bi awayekî fermî bû endamê Rêxistina "Geneva Call" (Bangewaza Jenevê). Me di hejmara berê a Agirî de agahî û nûçeyên berfireh li ser vê saziyê û endambûna PDK Îranê di vê saziya cîhanî de belav kir. Rêzdar Mistefa Hicrî, Sekreterê Giştî Yê PDK Îranê ji aliyê vê rêxistinê ve bo derveyî welat hatibû vexwendin û di rê û resmeke taybet de li bajarê Jenev a Swîsê, endambûna PDK Îranê di vê saziyê de wajo kir. Piştî vegeriyana Kekê Mistefa Hicrî ji vê seferê bo Kurdistanê di çend rojên borî de, me di vê derbarê de çend pirs ji birêz Hicrî kirin û wî bi vî awayî bersiva pirsan da:

**Hevpeyvîn/ Dilvîn**



**Kekê Mistefa! We wekî Sekreterê Giştî yê PDK Îranê endambûna vê partiyê di Rêxistina Bangewaza Jenevê îmza kir. Çawa bû ku PDK Îranê bû endamê Rêxistina cîhanî a "Jeneva Call"ê?**

Telifîn û xisarên canî û malî ên mayînên dijî kes ku li cihên cur bi cur ên Kurdistanê ji aliyê Komara Îslamî a Îranê ve hatine danîn, gellek xuya û berçav e. Nemaze ku ev xisar, ziyan û telifîn hemû berbirûyê xelkê xizan û hejar û belengaz yê Kurdistanê ên niştecihên deverên ser sînoran û cotkaran bûye.

Bi sedan kes di wan herêman de yê bûne goriyên wan mayînane û roj bi rojê hejmara wan di halê zêdebûnê de ye. Rejîma Komara Îslamî jî di vê derbarê de tu kirin û gavek bona paqijkirin û ji holê rakirina ew erdên ku bixwe mayînrêj kiriye, nake; herwiha bi sedema teqîna wan mayînan bi wan kesan re ku beşek li endamên laşê xwe ji dest dane, yan ew malbatên ku bi vê sedemê mezinê malê yan bêjim kasibkarê malbatê ji dest didin, alîkariyên pêwîst nake.

Bi giştî ez dikarim bibêjim ku bi dehan hezar kes bendewarê encamên dilêş û xirab ên wan mayînane ne. Ev rewşe bi hinek ferq û cudahiyên kêm û zêde, li nawçeyên ser tixûbên din yên Başûrê Îranê û herwiha beşeke zaf a dunyayê, bo mînak weke Kurdistanê ku şer û pevçûnên çekdarî têde hene, tê xuyakirin.

Em dibînin ku di gellek welatên cîhanê de ku xizanî, feqîrî û destkurtiyê jiyana xelkê rastî arîşe û dijwariyan kiriye, carên wilo jî heye ku xelk ji aliyên kêm ên hewcedariyên jiyanê bêpar in, pirsa mayînan jî bixwe serbarê derdên dinê ye.

Bi van sedeman û wekî erkeke mirovane Partiya Demokrat bi pêwîst zanî di Rêxistina "Geneva Call"ê (Bangewaza Jenevê) de bibe endam daku bikare bi komdengî tevî endamên din ên wê saziyê karîna xwe li dijî bikaranîna mayînên dijî kes bixe kar.

**Endambûna PDK Îranê di vê rêxistina navneteweyî de ji bo partiya we û tevgera rizgarîxwaziya Kurd çi qazanc û girîngî heye?**

Girîngiya endambûna me di vê rêxistinê de di vê çendê de ye ku ji bilî bicî gehandina erkeke mirovdostane, di vê yekê de ye ku PDK Îranê tevî hejmarek din ji rêxistinên siyasî û ne siyasî nasiyar dibe û bi vî awayî derwazeyeke qanûnî bi rûyê xwe de veke û ji vê rêyê ve dengê mafxwaziya gelê Kurd û ew zulm û zordestiyên ku li ser Kurdan dimeşin, bigehîne guhê xelkê dunyayê.

**Gelo partî û rêxistinên din ên Kurdistanî û Îranî di vê saziyê de endam in an na?**

Tu partiyên Îranî endamên vê rêxistinê ninin, lê Partiya Demokrat ya Kurdistanê(PDK), Yekîtiya Nîştimanî a Kurdistanê (YNK) û Partiya Kedkarên Kurdistanê (PKK) di Bangewaza Jenevê de endam in.

***Kekê Mistefa Hicrî gellek spas bona bersivdana pirsên me.***

Ez jî we spas dikim û ji we û xwendevanên hêja ên Agirî re hêviya saxî û serkevtinê dixwazim.

# 23'hemîn Dewreya Perwerdehiya Navincî A Kadr Bi Dawî Hat



**Dîmenek ji mamosta û beşdarên dewreyê piştî bi dawîhatina rê û resmê**

Êvariya roja yekşem, 30.12.2007'an, Komîsyona Lêkolîn û Perwerde ya PDK Îranê bi boneya dawî hatina 23'hemîn dewre(kurs)ya siyasî a navincî ya Kadr rê û resmeke hêja û berfireh bi beşdariya Sekreterê Giştî yê partiyê, birêz Mistefa Hicrî endamên rêberî û Kadro, Pêşmerge û malbatên wan û beşdarên dewreya han li darxist.

Destpêka rê û resmê bi sirûda neteweyî a **Ey Reqîb** û piştre deqîqeyekê bêdengî ji bo rêz û hurmetgirtin ji canê paqij yê Şehîdên rêya azadiya Kurd û Kurdistanê dest pê bû.

Piştre **Husên Nazdar**, endamê Komîteya Navendî û berpirsiyarê Komîsyona Lêkolîn û Perwerde ya PDK Îranê axavtinek kir û di axavtina xwe de bi hûrî û berfirehî bal kişande ser armancên rêvebirina vê zandora perwerdehiyê û girîngî û pêwîstiya perwerde û elimandina Kadroyên partiyê bona xizmet bi armancên demokratîk û neteweyî yên gelê Kurd.

Dûre **Mehdî Bedrî** rêveberê 23'hemîn dewreya siyasî a navincî ya Kadr rapora perwerdehiya vê kursê pêşkêş kir û li ser naveroka waneyan û encamên dersan li ser elimandina beşdaran axivî. Wî di raporê de serbarê pîrozbahî ji beşdarên zandorê, spas û pêzanîna Komîsyona Lêkolîn û Perwerde ya PDK Îranê ji ked û mandîbûna mamostayên fêrkar ên dewreyê pêşkêş kir.

Piştre Peyama beşdarên 23'hemîn dewreya siyasî a navincî ya Kadr bi nûneriya beşdaran ji aliyê **Soran Mehmûdî** ve hate xwendin. Di peyama han de li ser fêrbûn û hînbûnê weke erkeke serke û girîng ya xebat û tekoşîna Kadro û Pêşmergeyên azadîxwaz ên PDK Îranê tekez hatibû kirin.

Piştre ji aliyê Mehdî Bedrî ve kesên ku pileya 1 heta 3 bidestve anî bûn, hatin nasandin û ji aliyê **Erfan Rehnimûn**, endamê Ravêjkar yê Komîteya Navendî ya PDK Îranê ve xelat bi ser wan de hate parvekirin. Ev 3 kes ev in:

Pileya 1: **Omîd Mendomî**
Pileya 2: **Çinûr Qadirî**
Pileya 3: **Riza Muradî**

Di navbera beşên rê û resma bidawîhatina 23'hemîn dewreya siyasî a navincî ya Kadr de çend parçe muzîk û stranên Kurdî hatin pêşkêşkirin. Dawiya rê û resma han bi govend û şahiya beşdarên civînê bû ku coşek germ dabû beşdaran.

Hêjayî gotinê ye ku 23'hemîn dewreya siyasî a navincî ya Kadr 2 mehan dom kir û têde zêdetirî 20 mijar û waneyên cur bi cur ji aliyê mamsotayên zandorê ve bo beşdaran hatin gotin.

# Çarenivîsa Demokrasiyê Li Pakistanê Piştî Terorokirina Bênezîr Boto

**Rapor/Azad Kurdî**

Cîhan di rojên dawiya sala 2007'an bi bûyereke terorîsît hate hejandin. Roja pêncşem 27.12.2007'an Serok Wezîra berê ya Pakistanê û Rêbera Partiya Gel a Pakistanê (PPP), Bênezîr Boto di êrîşeke terorîstî li bajarê Ravalpindî a wî welatî hate terorkirin. Botoya 45 salî di civîneke berfireh a partiya xwe û di nav xulyaqeteke zaf de bû armanca vê êrîşê û di encama bûyera han de gellek kes jî hatin kuştin û birîndarkirin. Piştî vegeriyana wê ji bo Pakistanê eva cara duyemîn bû ku Bênezîr Boto dibû armanca terorê. Lê carê nekarî jiyana xwe rizgar bike.

Bênezîr Boto di 21.06.1953'an de li malbateteke siyasetvan li bajarê Keraçiyê ji dayîk dibe. Ew keça Zulfeqar Elî Boto, siyasetvanê navdar yê Pakistanê ye ku sala 1979'an ji aliyê desthilata Ziya El Heq tê îdamkirin. Boto di hevpeyvînekê de bi rojnamevanê Kurd Xelîl Sincarî re li civîna Enternasyonala Sosyalîst ku destpêka sala 2007'an, hate lidarxistin, li ser Kurdbûna xwe wiha dibêje: ***"Pîreka dayîka min Kurd bû, yanî hinek xwîna kurdî di nava xwîna min de heye, her cara ez tiştekî li ser Kurdan di rojnameyekê de dibînim, yan ku dixwînim, di cih de wê rojnameyê digirim û dixwazim kûr bixwînim, ji bo ku bizanibim ka çi bû ye".*** Di navbera salên 1977 heta 1984'an de Boto çendîn caran ji aliyê dewleta wê demê a Pakistanê tê girtin. Cara dawîn ku serbest tê berdan, bi neçarî diçe welatê Îngilîstanê.

Bênezîr Boto piştî arambûna rewşa Pakistanê di Çileya Pêşîn a sala 1986'an vedigere welat û pêşwaziyek germ û berfireh jê tê kirin. Li 1'ê Çileya Pêşîn a sala 1988'an û di temenê 35 saliya xwe de weke Serok Wezîra herî ciwan a Pakistanê tê hilbijartin. Piştî ku sala 1990'an ji aliyê Xulam Eshaqxan li kar tê avêtin, dûre di sala 1993'an de dubare dibe Serok Wezîr.

Sala 1996'an ji aliyê Serok Komarê wê demê yê Pakistanê ji kar tê avêtin. Piştî derbeya leşkerî ya General Perwîz Muşeref di salal 1999'an, ew bo dema 8 salan neçar dimîne welatê xwe biterikîne û di Îngilîstan û Mîrîtiyên Yekgirtî ên Erebî xebata siyasî didomîne. Roja 18.10.2007'an û piştî hinek guhertinên siyasî li Pakistanê, piştî 8 salan xerîbî û sirgûnê vedigere welatê xwe.

Boto weke yekemîn jinan siyasetvan a Pakistanî û yekemîn jin bû ku di welateke îslamî de karî bû berpirsiyariya bilind a dewletê wekî Serok Wezîriyê bidest bixe û rêveberiyê bike. Di Rojhilata Navîn de wê rûmeta yekemîn jina Serok Wezîr di karnameya xwe ya siyasî de heye. Ew zêdetir weke kesayetiyeke demokrasîxwaz û her wiha dijberê hişkî û tundajoyiya Îslamî li Pakistanê tê naskirin. Boto piştî deh salan dûrî ji Pakistanê, ku xwe ji bo vegeriyana dubare ji bo desthilatê amade dikir, rastî wê bûyerê hat û jiyana xwe ji dest da.

Bi mirina Boto cîhanê û nemaze Rojhilata Navîn kesayetiyeke alîgirê demokrasiyê ji dest da û bi çûna wê valahiyek mezin di tevgera demokrasîxwaziya vê devera cîhanê de û nemaze di welatê Pakistanê de pêk tê.

Li pey kuştina Bênezîr Boto, rewşa Pakistanê bi giştî aloz û tevlihev bûye, alîgirên nerazî û dilgiran ên wê û Partiya Gel a Pakistanê rijiyane şeqam û rêyan û li gorî ew dîmen û wêneyên ku van çend rojane di Televîzyonan de belav dibin, ew bi dar û keviran, otombîl û avahî û cihên giştî didin ber êrîşa xwe û gellek cihan jî dişewitînin û bi vî awayî kerb û kîn û nerazîbûna xwe didin xuyakirin. Ji ber vê taybet bidestxistina bombeyên Etomî ye. Wek tê zanîn Pakistan yek ji wan welatên herêmê ye ku di warê hebûna hêza Navikî (Nukler) xurt e, ev yek jî dikare ji bo tundajoyên wî welatî û Efxanistanê bibe armancek eslî ku ev yek gefê li aştî û ewlekariya dunyayê bi giştî dike. Bi taybet Talîbanan li Pakistanê nifûzek zaf heye û tirs û xetera bidestveanîna çekên Etomî ji aliyê wan gellek zêde ye. Dewleta Pakistanê Girûpa El Qaîdê berpirsiyariya kuştina Boto da zanîn. Lê rêveberên El Qaîdeyê vê yekê red dikin.

Nîqaşa tund derbarê terorkirina Boto di navbera berpirsiyarên Partiya Gel, partiya Boto û dewletê de rewş aloztir kiriye. Ew îdeayên dewletê li ser kuştina Bênezîr Boto nerast dizanin û dibêjin ku dewlet van îdeayan bona kêmrengkirina xemsarî û balnedan bi parastina Bênezîr Boto dihesibînin.

Xalek ku girîng û balkêş e, eva ye ku bi vê rewşa ku li pey terorkirina Boto li Pakistanê hatiye rojevê û ew welat şiliqandiye, gelo dê çi bihê serê pêşeroja siyasî a Pakistanê? Gelo rewşa heyî bi qazancê dewletê ye û bûyerê rewşa awarte li Pakistanê hatiye îlankirin. Vê bûyerê rewşa aştî û pêvajoya demokratîzekirina Pakistanê ku Boto û partiya wê jê re xebat dikir, rastî asteng û arîşeyên xurt û micid kir.

Pakistan yek ji wan welatan e ku herdem hêz û petansiyela şerê navxweyî têde heye, ne dûr e ku terorkirina Boto destpêkek be bona vî şerî. Qewimîna vê bûyerê her şîrove û analîzek derbarê pêşeroja siyasî a Pakistanê rastî gumanan kiriye û mirova bi hêsanî nikare bibêje ku çi li benda pêşeroja Pakistanê û jiyana xelkê wî welatî ye.

Xetereke herî mezin ku gefê li pêşeroja Pakistanê dike, bihzêbûna hêzên radîkal û tundajo ên wî welatî û xetera bidestvegirtina desthilatê ji aliyê wan, bi Perwîz Muşeref dubare dê bibe desthilatdar? Gelo alternatîveke din li hember Muşerefê alîgirî Amerîkayê bona berlêgirtin û xebt li dijî terorîzmê dê peyda bibe ku hem dewletek demokratîk li Pakistanê ava bike û hem hevhêl tevî Amerîka jî li dijî terorîzmê bimeşe? Pêşeroja demokrasiyê pêka rewşa niha dê çi jê bihê? Çarenivîsa Partiya Boto û partiyên din yên Opozîsyona dewleta Muşeref dê ber bi kuderê biçe? Hilbijartinên ku qirar bû di destpêka sala 2008'an da werin lidarxistin, çawa û di bin çi pîvan û mercan dê rêve biçin? ...

Rojeva siyasî a pêşeroja Pakistanê dê bersiva van pirsane û gellek yên din diyar bike....



**Bênezîr Boto weke yekemîn jinan siyasetvan a Pakistanî û yekemîn jin bû ku di welateke îslamî de karî bû berpirsiyariya bilind a dewletê wekî Serok Wezîriyê bidest bixe û rêveberiyê bike**

# Daxuyaniya Hevbeş A 12 Partiyên Kurd Û Kurdistanî, Derheq Êrîş Û Topbarankirina Başûrê Kurdistanê Ji Aliyê Dewleta Turkiyê Ve



Sibêdeya roja yekşem, 16.12.2007'an, balafirên şerker ên dewleta Turkiyê di êrîşekê de, hejmarek ji gundên başûrê Kurdistanê topbaran kirin.

Di encama êrîşa han de, hejmarek ji hevwelatiyên sivîl ên Kurd ku di nava wan de jin û zarok jî dihatin dîtin, jiyana xwe ji dest dan.

Her wiha akinciyên deverên han, ji tirsa domandina êrîşan, bi neçarî berbi bajar û bajarokên derdorê koçber bûne.

Destdirêjiyên dewleta Turkiyê bo ser axa Herêma Kurdistanê bê tu belge û di rastiyê de, binpêkirina usûl û azînên navneteweyî tê hesibandin.

Partiya Karkerên Kurdistanê(PKK) jî tenê hêcetek e û armanca sereke a dewleta Turkiyê tenê û tenê dijberîkirin tevî maf û azadiyên neteweya Kurd û vîna xelkê Başûrê Kurdistanê ye ku li gor yasaya bingehîn a dewleta federal ya Îraqê, xwediyê herêmek otonom in.

Her di vê derheqê de jî kiryarên han, xêncî alozkirina deverê, tu arîşe û û pirsgirêkekê ji bo tu kesê çareser nake.

Eva ku di vê bûyerê de ji bo me û xelkê Başûrê Kurdistanê cihê keser û her wiha cihê pirsiyarê ye, izndana dewleta Amerîkayê ye ji bo operasiyona han. Çunku niha jî erkê parastina sînorên esmanî û erdî ên Îraqê, li stûyê hêzên hevalbendan e ku Amerîka serokatiya wan dike.

Em weke partiyên Kurd û Kurdistanî di vê daxuyaniya hevbeş de, êrîş û destdirêjiyên dewleta Turk bo ser axa Herêma Kurdistanê mehkûm dikin. Her wiha em hevxemiya xwe tevî malbatên şehîdan, birîndaran û kesên ku zirar gihîştiye wan, eyan dikin û daxwazê ji Konbseya Ewlekarî ya Saziya Neteweyên Hevgirtî, Yekîtiya Ewropayê û kom û civatên navneteweyî dikin ku li hember êrîşên dewletên Turkiye û Îranê bo ser herêmek ku weke beşek ji Îraqê tê hesibandin, bêdeng nebin û bi eşkere pêşiyê jê bigirin.

**Partiya Demokrat A Kurdistana Îranê**
**Partiya Sosyalîs A Kurdistanê(PSK)**
**Partiya Yekîtiya Kurd Li Sûriyê(Yekîtî)**
**Rêxistina Xebata Kurdistana Îranê**
**Rêkevtina Demokrat A Kurd Li Sûriyê(Wefaq)**
**Parityа Pêşverû Ya Demokrat A Kurd Li Sûriyê**
**Partiya Demokrat A Kurdistanê(PDK – Bakûr)**
**Partiya Yekîtiya Demokratîk A Kurd Li Sûriyê**
**Partiya Welatparêzên Kurdistanê(PWD)**
**Partiya Demokratîk A Kurd Li Sûriyê(El Partî)**
**Partiya Azadiya Kurd Li Sûriyê**
**Partiya Azdiya Kurdistanê**

# Lidarxistina Rê Û Resmekê Bi Hinceta Şeva Yelda, Şeva Ji Dayîkbûna Dr. Qasimlo

Roja Înê, 21'ê Çileya Pêşîn, demjimêr 18:30'an, hêza Parêzgariya PDK Îranê mîna deb û edetên 4 salên borî, îsal jî rê û resmek bi hinceta şeva Yelda, şeva ji dayîkbûna Dr.Qasimloyê zana, bi beşdariya hejmarek ji endamên rêberî yên PDK Îranê û sedan kes ji Kadro, Pêşmerge û malbatên wan lidarxist.

Rê û resm bi xwendina sirûda neteweyî ya "Ey Reqîb" û ragirtina deqîqeyek bêdengî ji bo canê paqij yê şehîdên rêya azadiya Kurdistanê dest pê kir. Piştî bixêrhatinkirina mêvan û beşdarên rê û resmê, ji aliyê rêveberên rê û resmê ve, nivîsarek wêjeyî ku beşek ji gotinên bedew yên Dr. Qasimlo bi xwe ve girtibû, ji aliyê **Mehmûd Fetahî** ve hate pêşkêşkirin. Piştre nivîsarek li ser dîroka şeva Yelda, ji aliyê **Xalib Hebîbî** ve hate xwendin.

Di beşek din a rê û resmê de, **Kawe Behramî**, endamê Komîteya Navendî û berpirsê Komîsiyona Siyasî- Nizamî a Partiya Demokrat, Berga sêyem a pirtûka "Tavgeyî Heqîqet" weke diyarî pêşkêşî şeva jidayîkbûna Dr. Qasimlo û gişt rêvîngên rêya wî kir. Helbestvanên jêr de hatî jî bi xwendina helbest û pexşanan beşdarî rê û resmê bûn.





**Nadir Elelyarî**, xatûna **Nahîd Huseynî**, **Sebest Şehabî**, **Fatih Salihî**, **Dr. Awat Sarêj**, **Arif Nadirî**, **Riza Emînî**, **Sarêj Mistefa**, **Hesen Mehmûdî**, xatûna **Hebîbe Ebdulahî**, **Ferzad Wehabzade**, **Şaho Îbrahîmî**, **Riza Feyzî**, **Beyan Mêhrfer**, **Jîla Barîke**, birêz **Rehman Dartaş**, **Selah Remezanî** û **Efrasiyab Giramî**.

Di doma rê û resmê de çend stran ji aliyê hunermend **Fereydûn Ezîmî** û hunermend **Farûq Sultanî** ve hate pêşkeşkirin.

Rê û resm di nava govend û dîlana beşdaran de dawî pê hat.

## Daxwaza Çend Sazî Û Rêxistinên Îtalyayî Ji Bo Azadkirina Ednan Hesenpûr Û Hîwa Botîmar

Rêxistina Gihandina Agahiyan, Saziya Azadî û Ewlehiya Nûçegihanan, Rêxistina Esla 21'an a Sendîkaya Neteweyî a Rojnamevanên Îtalyayê, Rêxistina Dest li Qabîl Nedin û Kovara "Testimonianze", daxwaza azadiya bilez û bêşert û merc ya Ednan Hesenpûr û Hîwa Botîmar, rojnamevan û çalakên sivîl kirin.

Di vê bangewazê de hatiye: "Ednan Hesenpûr û Hîwa Botîmar, tenê nûçegihan in, xeyanet jî nekirine, li dijî ewlehiya welat jî nepeyivîne, lewra bi navê bexşîn û dilovaniya ku ji taybetmendiyên Xwedê ne û navê Komara Îslamî jî ji wan taybetmendiyan çavkanî girtiye, daxwazê ji Serok Komarê Îranê, Ehmedînejad dikin ew cezaya ku roja 16'ê Tîrmeha borî ji aliyê dadgeha Sine ve ji bo wan hatiye diyarîkirin, bide betalkirin.

Her wiha di nivîsekê de ku ji aliyê civata han ve wekî pêveka bangewaziyê hatiye belavkirin, hatiye 8 nûnerên parlemana Îtaliyayê û dewletên Îtaliya, Fransa û Serokatiya Yekîtiya Ewropayê ku zêdeyî vê kampanyê bûne, piştevaniya xwe ji azadkirina van du nivîskaran ragehandine.

Di dadgehîkirina Ednan Hesenpûr û Hîwa Botîmar de heta yasayên rejîma Îslamî bixwe jî nehatine liberçavigirtin û kesên navhatî bê hebûna parêzvanan ji aliyê dadgehên rejîmê ve bi cezayê îdamê hatine mehkûmkirin.

# PSK'ê Kongireya Xwe Ya 8'an Lidarxist

Di çend rojên borî de Partiya Sosyalîst a Kurdistanê(PSK) kongireya xwe ya 8'an bi merema pêdeçûn bi ser kar û bernameyên partiyê de pêk anî û di çend rojên berdewam de serkeftiyane dawî bi karê xwe anî.

Li gorî zanyariyên berpirsekî vê partiyê, kongire di rewşek pir aram û demokratîk de birêve çûye û têde rewşa siyasî a Kurdistan, Turkiye, Rojhilata Navîn û cîhanê bi giştî ketibû ber nîqaş û nirxandina endamên kongirê.

Herweha di beşek din a karê xwe de, kongire li ser pirsgirêk û pirsên hundirîn yên partiyê sekinî û di vê derheqê de rêçare û biryarên hewce jêre destnîşan kirin.

Kongirê herweha endamên Komîteya Navendî hilbijart. Piştre jî endamên Komîteya Navendî di civîna xwe ya yekemîn de birêz Mesûd Tek bo cara duyemîn wekî Sekreterê partiyê hilbijart.

Piştî bidawîhatina kongirê, Partiya Sosyalîst a Kurdistanê di daxuyaniyekê de dawîbûna serkeftiyane ya kongreya xwe ya 8'mîn ragihand û PSK dîsan tekez li ser Federasiyonê kir û ew dirûşm di zirûf û qonaxa îroyîn de bi baştirîn metod û mekanîzm ji bo çareseriya pirsa kurd di Kurdistana Turkiyê de da zanîn.

Herweha Kongirê di beşek din a karê xwe de li ser xebata rêxistinî û rewşa siyasî jî hin biryar girtin ku em dê li jêr de îşare bi çend heb ji wan bikin:

-Piştgiriya xebata azadiyê li beşên din yên Kurdistanê dike. Piştgiriya xebata gelê Kurdistana Rojhilatê ya li dijî dewleta dagirker ya Îranê dike û hevkariya xwe bi Kurdên Îranê re radigihîne.

-Kongra piştgiriya hewla navnetewî ku ji bona pêşîlêgirtina projeya Etomî ya Îranê tê dayînê, dike û banga rejîma Îranê dike, ku ji bona demokratizekirina welat û çareserkirina pirsa Kurd gavan bavêje.

-Kongre, li Kurdistana Sûriyê piştgiriyê li xebata wan bona mafên netewî, çandî û sosyalî dike û ji hikûmeta Sûriyê dixwaze, ku bona çareserkirina pirsa Kurd, gavan bavêje.

-Kongra, piştgiriya xwe li Hikûmeta Herêma Kurdistanê ku bona parastin û geşbûna deskevtiyên netewî kar û xebatê dike, radigihîne..

-Kongra, gefa dewleta Îran û Tirkiyê li ser ezmûna Kurdistanê protesto dike û hevkariya xwe ligel Kurdên Başûrê eşkere dike.

-Kongra, piştgiriya hewla çareserkirina kêşeyê Kerkukê bi gor xala 140'ê ya destûra Îraqê dike.

-Kongre daxwaz ji Tirkiyê dike, ku dev ji neyartiya Kurdistana Başûrê berde û li ser parastina berjewendiyên herdu alî, ligel Hikûmeta Herêma Kurdistanê peywendiyê bigre.

-Kongra, li ber şehîdên Kurdistanê kurnoj dibe. Hemû hevalên, ku di refa partiyê da canê xwe dane, bi taybetî Zana Budak, Eşref Kaygalak, Yahya Turan û Mahmut Yîgîtel (Mamo), ku paş Kongra 7'an çûne dilovaniya xwe, yad dike.

-Xebata dîplomatîk li derveyî welat gellek girîng e. Ji bona xebata dîplomatîk a bihêz, bona çareserkirina pirsên aborî, siyasî û çandî ya Kurdên li xerîbiyê pêwîst e rêxistinên Kurdên derveyî welat destê xwe bidine hevdu û bi hevra xebatê bikin.

-Kongra, erkeke pîroz datîne li pêşiya Komîta Derveyî Welat ku bona bidestxistina armancên jorîn, yekîtiya rêxistinên demokratîk yên ku nêzîkê partiyê ne, pêk bîne."

# Şiroveya Peyvên Siyasî



**Berhevkar: Omîd Esxeran**

## Otonomî(Autonomy)

Hizra otonomî weke rêçareyek ji bo pirsa nebûnek giştî di dewletên ku ji netewe, ol û kulturên cur bi cur pêk hatine ji destpêka sedsala bîstan ve bûye sedema hatine rojeva gengeşeyek zaf a siyasî û yasayî.

Peyva Otonomiyê hemberî **Self – Goverment** yan **Autonomy**iyê ye û di ensiklopîdiyaya Tirêkan (Enciclopedia Treccani) de jî hatiye ku otonomî peyvek "îxrîqî" ye û ji du beşan pêk tê: **Auto** ku tê wateye xwe û yasayên taybet bi xwe, anku mirov bi xwe desthilatê bi ser xwe de dimeşîne.

Hin kes wiha dihizirin ku peyva **Autonomy** yan **Self – goverment** ku hember peyva otonomiyê ye, di demekê de tê rojevê ku bas ji pirsên parvekirina desthilatê tê kirin. Her wiha wan deman ku desthilata kontrolkirina kar û barên navxweyî ji wan welat û girûpan re hatibe dayîn ku hêj negihîştine qonaxa serxwebûnê û nikarin kontrola kar û barên xwe ên derve bikin.

Bi awayeke tekûztir, otonomî **Self – goverment** bi wateya beşek ji hukmê xwe (**A Share of Self – goverment)** ye. Çend sedema hene ku Hizra otonomiyê di yasaya giştî û navneteweyî de tê bikaranîn. Yek ji wan sedeman eva ye ku neteweyek diyarîkirî ku xwediyê tev merc û pîvanên bidewletbûnê ye, lê hêj negihîştibe qonaxekê ku bi xwe bikare dewletek serbixwe ava bike, wê demê ye ku pirsa otonomiyê tê rojevê. Eva ji ber vê çendê ye ku neteweya han xwediyê gişt merc û pîvanan ji bilî serbixweyiya derveyî ye. Di qonaxa han de dewletek Kolonyalîst tê ser kar û bo heyamek diyarîkirî desthilatê bidestve digire.

Di encam de Otonomî veguhastin e ku li gor belgeyên navndewletî çi ji rêya Civata Neteweyan û çi jî Saziya Neteweyên Hevgirtî ve bi wajokirina hevhatin tevî hin welatên ku îdareya kar û barên herêmên bin dest bidestve ne tê holê.

Serbarê vana Otonomî wateyek din jî bi xwe digire. Şêwaza han awayek ji nenavendîbûna herêmî di çarçoveya yekîtiya yasayî û siyasî a dewletê de ye. Di mînaka han de otonomiyê tu pêwendiyek tevî yasaya giştî a navneteweyî nine, belku sîstemek yasayî a hundirîn e ku rewatiya xwe ji bingehên yasaya navxweyî a wî welatî digire. Bi vî awayî dezgehên otonom hin kar û barên yasayî di çarçoreveya yekîtiya siyasî û yasayî a dewleta navendî de diceribînin.

Derheq pênaseya otonomiyê pênaseyên cur bi cur hene ku em dikarin qala **Dînîsov**(Denisov) hizirvanê Soviyeta berê bikin ku wiha otonomiyê pênase dike: "Rêçareyek jêhatî ji bo avakirina dewlet li ser bingeha xwesteka xelk dema ku wan karîna eyankirina daxwaza cudabûnê ninin".

**Dr. Mihemed Hemewend** jî wiha pênaseya otonomiyê dike: "Sîstemek nenavendî û rêxistî li ser bingeha îfadekirin bi serxwebûnê di meşandina kar û barên herêmek taybet a neteweyî û regezî di bin çavdêriya dewleta navendî ye".

Di encam de em dikarin otonomiyê wiha pênase bikin: "Şêwazek pêşketî a nenavendîkirina îdarî ye ku tê de dewlet – di çarçoveya yekîtiya yasayî û siyasî de – îfadê bi hin desthilatên yasayî û birêveberî ên netewe yan girûpek olî, zimanî yan olî di bin çavdêriya xwe de dike".

**Jêder: Fêdiraliyet û Derfetî Piyadekirdî Le Êraq da**

# Gola Urmiyê Di Bin Gefa Hişikbûnê De

**Mecîd Cinîkanlû**

Gola Urmiyê, mezintirîn avgira hertimî a Kurdistanê û Rojavayê Asyayê ye ku ketiye Rojhilatê Kurdistanê û sînorê navbera Kurdistanê û bajarên Turkakincî diyarî dike. Gola Urmiyê ketiye rojavayê felata Îranê ku di navbera 35 derece û 5 deqîqe heya 38 derece û 16 deqîqe panayiya bakur û 45 derece û 10 deqîqe heya 36 derece bi dirêjahiya rojhilatê ye û dirêjahiya wê ji bakur ber bi başûr e. Derdora gola Urmiyê 35000 kîlometra çargoşe ye û rûbera wê jî 4868 kîlometr e. Dirêjiya wê 139/8 kîlometr û panatiya wê jî 30 heya 50 kîlomtr e.

Bilindiya gola Urmiyê li gor Kendava Fars 1274 metr e û beyav(guncayiş)a vê qasî 12 milyar çargoşe hatiye zanîn. Kûrahiya navîn a gola Urmiyê 4 metr e ku li beşa bakur digihîje 5 yan 6 metran û beşên başûrê rojava jî digihîje 14 metran û hin caran jî di dema barîna baranê de digihîje 16 heya 17 metran. Di heyama demsala barîna baran û befrê de û helîna befra çiyayên Kurdistanê, rûber û kûrahiya wê zêdetir dibe. Av û hewayê derdora gola Urmiyê di hin deveran de navîn û heya qasekê germ û Malîziyayî û di hinek deverên din bi taybetî herêmên çiyayî ên giravên wê de, Medîteraneyî û navber heya qasekê hişk e. Tîrbûna zêde a ava gola Urmiyê ji ber hebûna xwêyê zaf, rê ji ber cemidîna ava wê di demsala zivistanê de digire ku taybetmendiya han bûye sebeb ku balindeyên avî di demsala zivistanê de ber bi vê deverê koç bikin. Gola Urmiyê xwediyê 102 kevir û giravan e ku piraniya wan vala ne û tenê girava Şahî ye ku jiyan tê de heye. Giravên girîng ên gola Urmiyê pêkhatî ne ji: Kebûdan, Koh Xer, Espîr, Arozdax, Nohgane, Kohgosfend ku mezintirîna wan girava Goyondax yan Kohgosfend e ku dirêjiya wê 9 kîlometr û panatiya wê jî heya 4 kîlometran e û tenê girava han e ku di heyama salê de xwediyê ava şirîn e. Gola Urmiyê di pirtûka "**Avesta**"yê de "Çîçest", pirtûka "**Pehlewî**" de "Çeçest" û her wiha li **Şahnameya** "**Firdosî**" de jî bi "Cêncest" hatiye bi nav kirin. **Hemdulahê Mostofî** li pirtûka "**Nezhol Qolub**" a xwe de, gola Urmiyê bi Çîçîst nav biriye. Li serdemê hikûmeta Aşor û Mediyan de, ji gola Urmiyê re Rîma yan Behra Hilhatina Rojê hatiye gotin. Domrêgan jî ji wê golê re gola Urmiye û li gor Îstêrabon jî Apaota gotine. Her wiha di hin çavkaniyan de jî navê bajar û gola Urmiyê bi hev re hatine. Li gola Urmiyê ji ber tîrbûna zaf ya ava wê, masî û canliberên din ên avî têde najîn û tenê curek Mêygo û Kêvjale ku dirêjiya wan 2 santîmetr û navê wan Ertemiyasalîna ye têde dijîn û her wiha di bin ava wê de jî curek colbek bi navê Siyanofî ku rengê wê reş e dijî. Balinde weke diyartirîn nîşaneya jiyanê di gola Urmiyê de tên hesibandin. Firîna bikom a Filamîngo, Pilîkanan, Netce û Kakayî di gola Urmiyê de, weke yek ji bedewtirîn wêneyên xwezaya Kurdistanê ye. Gola Urmiyê bi rûbera zaf, giravên cur bi cur, qiraxên kêm kûr û ji gişt vana jî girîngtir, ewlehî û aramiya wê, weke yek ji giringtirîn cihên jiyana balindeyên koçber e û di xweşikiyê de di parzemîna Asyayê de bêmînak e. Ava gola Urmiyê paqij û safî ye û li demên pirr aviyê de bi taybet di dema hatina bayên herêmî de, bêhnek nexweş û lîm (lecen) jê çê dibe ku lîmê (lecen)han di warê zanistî de dermanê nexweşiyên çermî weke romatîsm û nexweşiyên taybet jinan tê hesibandin. Di salê de gellek nexweş ji seranserê Îran û Kurdistanê ve ji bo dermanê nexweşiya xwe tên qiraxên gola Urmiyê. Li giravên gola Urmiyê bi taybet girava Qoyondaxiyê, Mişkên çiyayî, Beran, Gavê wehşî, Piling û canliberên din dijîn.

Mixabin niha ji ber siyasetên çewt ên rejîma Komara Îslamî ya Îranê û mifahwergirtinên xirab ên rejîma han ji çavkanî û çemên ku ava wan dirijine nava wê, ew gola bedew, xweşik, tibî û dahatdar berbi hişikbûnê diçe û serbarê vê çendê ku heya niha çendîn caran ji aliyê karbidestên navendên parastina Jîngehê ve gefa hişikbûna gola Urmiyê ji rejîmê re hatiye ragehandin, lê mixabin siyasetên gemar û şaş ên rejîmê hêj berdewam in. Rejîma desthilatdar di Îranê de, bi sedema nebûna bernameyek tekûz a aborî û giringînedan bi cihên torîstî weke gola Urmiyê û mifahwergirtina çewt ji çavkaniyên han, bi lêdana çendîn bendavan li ser çemên ku dirijîyêne nava vê golê de, mixabin xetera hişikbûna wê gihîjandiye cihekê ku **Ferux Mescêdî**, yek ji karbidestên Azerbaycana Rojhilat di civînekê de qala gefa hişkbûna gola Urmiyê bike. Navhatî her wiha dide zanîn ku hişikbûna gola Urmiyê dê bûyerek mirovî û zîndekarî lişûn de be. Her wiha li ser wê baweriyê ye ku heke li heyamê 20 salên pêşiyê de, rejîm wan siyasetên xwe bidomîne, gola Urmiyê dê bibe zonga şor. Navhatî her wiha îşare bi vê çendê dike ku di heyama çend salên borî de, 120 hezar hektar ji rûbera gola Urmiyê bûye zonga şor. Li gor nêrîna wî, eva di demekê de ye ku ji ber lêdana 14 bendav û 56 enbarên avê, heya sala 1400'an ya Rojî, gola Urmiyê dê hişk be û bibe zonga şor. Serbarê siyasetên veşartî ên rejîmê, li gor gotinên gellek ji xelkê deverên bajarê Urmiyê, rejîma Komara Îslamî ya Îranê, di yek ji giravên gola Urmiyê de, girtîxaneyek veşartî ji bo girtiyên siyasî heye.

Bêşik û guman heke rejîmek berpirsiyar, demokratîk û girêdayiyê usûl û azînên navneteweyî di Îranê de li ser destihlatê ba û siyasteke usûlî derheq parastina jîngeha gola Urmiyê û seyrangehên wê bidomanda, şik û guman tune ye ku gola Urmiyê dibû yek ji çavkaniyên girîng ji bo rakişandina torîst û xizmetkirin bi xelkê Kurdistana Îranê. Her wiha hebûna kirma Artêmiya ku hêlikên wê gellek bibuha û xwarinek baş e ji bo Meygoyan, dikare berhemek giring a gola Urmiyê be. Di salên 1379 – 1380(2000 – 2001)'an de, sê şîrketên Koln a Almanî, Dam Toşê a Amerîkayî û "Sêyd û Seyad" a Îranî di gola Urmiyê de mijûlî girtina hêkên kirma Artimiya bûn. Ev çende bibû sedem ku nêzîkî 4000 kes ji xelkê deverê bibin xwediyê kar. Lê serbarê gişt taybetmendiyên han, mixabin ji ber siyasetên çewt ên rejîma Komara Îslamî ya Îranê, hişkbûna gola Urmiyê nêzîkî rastiyê dibe.

"UNESCO" (Saziya Zanistî û Çandî a Neteweyên Hevgirtî), gola Urmiyê weke yek ji 59 çavkaniyên xwezayî ên cîhanê hesibandiye. Li gor danezanînên pisporan, heke gola Urmiyê hişk be û bibe zonga şor, serbarê guherîna ekosîstema xwezayî a herêmê, bêhnkêşan jî dê hemberî pirsgirêkan be û xelkê derdorê tevî arîşeyên zaf berbirû bin. Di encam de girîng e ku em hemû bi hev re û hevdeng kom û civatên navneteweyî û parêzerên jîngehê ji xetera hişkbûna gola Urmiyê ji ber siyasetên çewt ên rejîmê, hişyar û haydar bikin.



# Jinên Kurd Di Çepera Xebata Azadîxwazî Û Berxwedaniyê de

**Hemîd Muxtarî**

Kurdistan bi hebûna çavkaniyên xwe yên binerd û girîngiya wê a jeopolîtîkî, her tim bala dagirkaran ber bi aliyê xwe ve kişandiye. Ji ber vê yekê jî pir caran hatiye dagirkirin. Lewra netewa kurd herdem ji bo azadkirina Kurdistanê ji destê dagirkeran xebat û tekoşîn di warên cur bi cur de meşandiye. Her di vê pêxemê de bi dehan û bigire bi sedan rêber û pêşengên netewa Kurd weke **Şêx Seîdê Pîran**, **Seyîd Riza Dêrsim**, **Simkoyê Şikak**, **Qazî Mihemed**, **Dr. Qasimlo**, **Dr. Sadiq Şererfkenî** û hezaran mirovên dilêr û şervan canê xwe ji bo azadiya netewa xwe gorî kirine.

Dagirkaran herdem hewl daye ku netewa kurd bê serok û rêber bihêlin û bi pêkanîna dubendî û dijminatiyê di nava Kurdan de şerê birakujiyê di nava wan de çê bike û hinek ji wan ber bi aliyê xwe ve bidin rakişandin. Yan mezinên Kurdan ji war û welatên xwe dûr bixin û wan ber bi welatên dinê koçber bikin, heta Kurdistan perçe perçe kirin da ku kurdan ji hev dûr bixin û hêza wan kêm bikin, da ku bi rehetî bikaribin serhildanên netewa kurd ji nav bibin. Kurdan herdem ji bo diyarîkirina mafê çarenivîsa xwe a neteweyî xebat kirine. Di rastî de netewa Kurdan yek ji wan netewan e ku herdem hatiye qirkirin û kuştinê. Lê kuştin, qirkirin, dûrxistin, zîndanîkirin û... qet nebûye sedema bidawî hatina xebat û berxwedaniya Kurdan. Belku berevajî vê yekê, netewa Kurd herdem li dijî zilm û zordariya welatên dagirkar şer kiriye.

Di pêvajoya dîroka azadîxwaziya Kurdan de xebat tenê ji aliyê mêrên Kurdan ve nehatiye kirin. Belku gellek keç û şêrejinên Kurdan jî hebûne ku beşdarî piroseyên xebat û berxwedana neteweyî bûne û rolên berbiçav lîstine û dîroka xebata netewa Kurd herdem zindî ragirtine. Bi rastî ger di xebat û serhildanên Kurdan de jinên Kurdan jî bi her awayekê ku be, beşdar neban, renge îro rojê xebat û pirsa netewa Kurd di cîhanê de negihîştiba vê astê.

Di serhildanên **Seyîd Reza Dêrsim** û **Agirî** û **Komara Kurdistanê** ve bigere heya îro rojê, bi sedan jinên dilêr di xebatê de beşdarî kirine û di çepera xebata azadiya Kurdistnê de, mil bi milê mêran xwe li dijî zilm û zordariyê şer kirine.

jinên weke "**Rabîe Xanim**", hevjîna **Biroyê Hesikê Têlî**, ku di destpêka şerê Agirî de çû cem hevserê xwe û di girê Sîna de bi wî re li hember leşkerên Îranê şer kir û bi mêr û zarokên xwe ve di nava şerê han de hate şehîdkirin.

Herwiha "**Asiya Xanim**" diya **Ferzinde Beg**. Wê pîrejina birûmet bi kur, bûk û neviyên xwe di nava şoreşa Agirî de şer



**Mîna Qazî**

dikir û roja 17.09.1930'an bi destê leşkerên Îranê hate şehîdkirin.

Yan "**Mîna Xanim**" a hevjîna **Qazî Mihemed**, Pêşewayê Kurdistanê ku di avakirina Komara Kurdistanê de beşdar bû. **"Mîna Xanim"** weke şêrejineke Kurdan herwiha di damezirandina Yekîtiya Jinên Demokrat yên Kurdistana Îranê de xwediyê rolekê girîn bû.

Yan "**Zerewşan Xanim**" diya sê Şehîdên serbilind ên Kurd bi navên Ehmedxan Faroqî, Ebdulahxan Faroqî û Mihemedxan Faroqî li bajarê Seqizê, dema ku piştî têkçûna Komara Kurdistanê, digihîje bin sêdara xortên xwe, hinkî disekine û dibêje: **Kurên min, şîrê Diya we ji we helal be, gerdena we aza be, rûyê we sipî be, çawa ku we rûyê diya xwe sipî kir. Ez ji bo we tazî û şînê nagirim, xaliyê li ser xwe nakin, çimku we bi mêrxasî û serfirazî jiyan kir û bi mêratî çûne bin sêdara îdamê. Hûn li ser dizî, mêrkujî, xeyanet û xwefiroşiyê nehatne kuştin. We di pêxema azadiya welat û azadiya gelê xwe, li ser şeref û namûsê canê xwe kire gorî. Lewra hûn qet namirin, ji ber ku hûn şehîdên Kurdistanê ne û herdem di nava dilê netewa xwe de zindî ne**.

Piştî wê çendê ku termê wan sê şehîdên Kurdistanê li bajarê Seqizê, li ser sêdarê anîne xwarê, Zerewşan Xanim nav çavê wan radimûse û hinek ji xwîna birîna sûmetê xwe li rûmetê zarokên xwe dihusû. Mamostayekî olî ku li wir dibe jê re dipirse: Zerewşan Xanim tu çima wiha dikî? Zerewşan Xanim dibêje: **"Mamosta ez dizanim ku kurên min qet ji mirinê natirsin, ji ber ku min ew welidandine, wan şîrê min vexwariye û di hembêza min de mezin bûne. Lê tu bi xwe dizanî rengê mirovên bê can namîne û rûmetê wan sipî dibe, lewra ez rûmetê wan bi xwîna xwe sor dikim da ku neyar û nehezên netewa me nebêjin, kurên Zerewşan Xanimê, ji mirinê tisiyane".**

Herwiha jina weke **Leyla Zana,** weke nûnera netewa xwe, bi kincên Kurdî û bi ala Kurdistanê diçe Parlemana Turkiyê û bi zimanê Kurdî daxwaza mafê netewa xwe dike. Lewra ji aliyê dewleta nejadperest a Turkiyê ve di roja 02.03.1994'an de, tê girtin û bi 15 sal cezayê girtîgehê tê mehkûmkirin ku piştî qetandina 10 sal ji zîndana xwe bi zext û givaşên bîr û raya giştî yên cîhanê tê azadkirin. Herçen ku **Leyla Zana** 10 salan di zîndana dewleta Turkiyê di bin îşkence, lêdan û bêhuremtîkirinê de dimîne, lê zîndanîkirin û îşkencekirina Leyla Zana ji aliyê dewleta Turkiyê ve qet nekarî wê ji xebat û berxwedaniya netewa xwe dûr bixe û ew niha jî xebata xwe a gihîştin bi azadî û demokrasiyê li Turkiyê didomîne.

Ger em dîroka xebata mirovahiyê ji bo azadiyê mêze bikin, dibînin ku tu serhildanek bê beşdariya berçav a jinan nekariye serkevtinê bi dest bixe. Ji ber ku jin nîviya civakê pêk tînin û bê mifawergirtin ji hêz û şiyana jinan ku yek ji nîşaneyên pêşkevtina civakê jî tê hesibandin, şoreş nikare ser bikeve. Lewra hewce ye ku partî û saziyên siyasî yên Kurd di her 4 parçên Kurdistanê de bihayê bidin rol û beşdariya jinên Kurd di pêvajoya xebata siyasî, azadîxwazî, çalakiyên sivîl û... di civakê de.

Em dikarin bibêjin eva gavek nûjen e ku asoya azadiya Kurdistanê nêzîktir dike.

## Bangewaz Û Eyankirina Nigeraniyê Ji Aliyê Rojnamevanên Kurdistana Îranê

Civata Rojnamevanên Kurdistana Îranê, girtin û îşkencekirina rojnamevan, xwendekar û çalakên bizava jinan, bi tundî mehkûm dike û derheq rewşa nediyar a Husên Ehmedî, rojnamevan û sernivîskarê Heftînameya Farsî – Kurdî a "Dîdgah"ê nigeraniya xwe eyan dike.

Bi windabûna Husên Ehmedî, hemû Kadroyên Heftînsmeya "Dîdgah"ê niha yan di girtîgehê de yan di bin çavdêriyê de ne û yan weke sernivîskarê vê heftînameyê di rewşeke nexuya de ne.

Bi taybetî kesên weke Îclal Qewamî, Aso Salih, Omîd Ehemedzade û Husên Ehmedî.

Civata Rojnamevanên Kurdistana Îranê daxwazê ji hemû sazî, rêxistin û navendên navxweyî û derve yên Parêzerên Mafê Mirovan û Saziya Nûçegihanên Bîsînor dike ku ji bo rohnkirina rewşa nediyar a Husên Ehmedî û Omîd Ehmedzade, rejîma Komara Îslamî a Îranê û berpirsên vê rejîmê bixin bin zext û givaşan daku ev du rojnamevanên navhatî jî tûşî çarenivîsa rojnamevanên din û parêzvanên demokrasiyê nebin.

# Daxuyaniya Rêxistina Parastina Mafê Mirovan Li Ehwazê Derheq Bûyera Dilêş Û Dijmîmirovî!

Sê mehan berî niha, hejmarek ji xelkê sivîl yên Ereb li bajarê Hemîdiyê, di 30 kîlometriya Bakûrê Ehwazê, piştî xwendina nimêja Cejna Remezanê, li dijî berfirehtirkirin û bêdengkirin xelkê Ereb yên Ehwazê, meşek aştîxwazane li darxistin. Hêzên rejîma Komara Îslamî a Îranê, li devera Ehwazê, êrîş kirin ser xwenîşanderan û hejmarek ji wan birîndar û sedan kes ji xelkê akinciyê bajarê Hemîdiyê û Ehwazê binçav kirin.

Di halekê de ku malbatên kesên girtî heya niha çendîn caran ji bo zanîna rewşa zarokên xwe seredana navendên ewlekarî û wezareta Sîxorî a rejîmê kirin, lê tu nûçeyek derheq zarokên xwe bidest nexistine – nişkêve di çend rojên borî de hikûmetê hejmarek ji wan malbatan agehdar dike û ji wan re dibêje ku meytên endamên malbata wan di nêzîk çemê Karûnê û yan Şeqaman de hatine dîtin. Navê hejmarek ji wan kesan bi vî awayî ne:

1. Xîban Obeydawî, 31 salî, kurê Casim ku heftiya borî 12'ê Çileya Pêşnî di çemê Karûnê de hate girtin.
2. Elî Çildawî, 23 salî, kurê Şawî, cenzaê wî di yek ji şeqamên bajarê Ehwazê de hatiye dîtin.
3. Tariq Mûsewî, 30 salî, xelkê Hemîdiyê ye û meytê wî jî roja 12'ê Çileya Pêşîn, di nava çemê Karûnê de hatiye girtin.
4. Elî Obeydawî, 37 salî, kurê Xanim (endamê berê yê Şêwra bajarê Hemîdiye) ku roja 20.12.2007'an di nava çemê Karûnê de hate peydakirin.
5. Yûsif Lutfpûr, 24 salî, kurê Mecîd, akinciyê bajarê Hemîdiyê ye. Malbata navhatî dibêjin ku cenazê wî ji aliyê rejîmê ve hatiye jinavbirin.
6. Ehmed Saedî, 23 salî, kurê Kerîm, cenazê navhatî jî bi sedema zêdebûna birînan li ser laşê wî, ji aliyê rejîma desthilatdar hatiye ji nav birine.
7. Welîd Nîsî, 50 salî, yek ji karmendên Navenda Çandî a Îşaqê ye ku 4 mehan berî niha hatiye girtin. Malbata navhatî heya niha nekarîne tu zaniyeriyekê derheq rewşa navhatî bidest bixin. Nîsî 4 mehan berî niha tevî 50 kesan, bi sedema karkirin di Navenda Çapemenî a Îşraqê de hate girtin.
8. Salih Amirî(Ehmed Cezagirî) 46 salî, Sekreterê berê yê Eniya Rizgarîxwaz bû. Lê pitir ji 30 salan dibe ku çalakiyên siyasî nake. Li gor gotinên malbata wî, navahatî niha di bin îşkenceyên hêzên rejîmê de di rewşeke pirr xirab de ye.

Ji girtiyên Cejna Remezanê di Ehwazê de heya niha tenê Adil Çildawî, hatiye azadkirin.

Em daxwazê ji gişt saziyên parastina mafê mirovan û saziyên azadîxwaz dikin ku li hember zulm û zordariya rejîmê derheq xelkê Ehwazê û gişt xelkê Îranê bêdeng nebin û bi pêkanîna zext û givaşanêê bo ser rejîmê îznê nedin rejîma Îslamî xelkê Îranê qir bike û pêşî ji bûyerên dilêş û dijîmirovî yên ji aliyê rejîma desthilatdar bigirin.

**Rêxistina Mafê Mirovan li Ehwazê**

# Nameya Kebûdvend Ji Bo Wijdanên Giştî, Xelkê Îranê Û Kurdistanê



Mihemedsidîq Kebûdvend, Serokê Rêxistina Parastina Mafê Mirovan li Kurdistanê, di nameyekê de ku ji girtîgeha Êvînê re ji bo wijdanên giştî, xelkê Kurdistan û Îranê şandiye, serbarê îşarekirin bi damezrandina rêxistina han, li gor benda 1'ê a madeya 2'an ya Carnameya Gerdûnî ya Mafê Mirovan û yasayîbûna çalakiyên vê saziyê li gor madeyên 19 û 28'an a carnameya han, nivîsandiye: "Tu yek ji çalakiyên "RMMK"ê tawan ninin û çalakiyên han weke gavavêtin li dijî ewlehiya neteweyî û hevkarî û hevdengbûn tevî neyarên rejîmê nahê hesibandin".

Li gor beşek din a nameya han, Rêxistina Parastina Mafê Miorvan, di sê salên borî de li Kurdistanê, di rewşên herî xirab yên ewlekarî, lêdan, îşkence, tirs û di bin sîbera ferq û cudahiyên ragehandinî ên desthiltadarên rejîma Komara Îslamî a Îranê de, bi hebûna hewcehiyên herî kêm ji bo berevanîkirin ji mafê mirovan xebat kiriye.

Mihemdsidîq Kebûdvend, di dawiya nameya xwe de aniye: "6 meh dibe ku ez li gor biryareke bizor û nedadwerane di benda takekesî de, di bin îşkence, lêdan, zext, givaş û bêhurmetîkirinên hêzên rejîmê de derbaz dikim û di vê heyamê de, ji hemû mafên takekesî, sivîl û mirovî bêpar im. Wiha xuya dibe ku eva buhayekî destpêkî dibe ku ez didim".

Hêjayî gotinê ye ku Mihemedsidîq Kebûdvend Serokê Rêxistina Parastina Mafê Mirovan li Kurdistanê, 6 mehna dibe ku ji aliyê hêzên ewlekarî yên Komara Îslamî a Îranê hatiye girtin û di girtîxaneyê de rewşek pirr aloz û xirab heye.

# Derheq Terorkirina Bînezîr Boto Yekîtiya Jinên Demokrat Ên Kurdistana Îranê Peyamek Sersaxiyê Da

Roja pêncşem, 27.12.2007'an, nûçeya terorkirina xatûna Bînezîr Boto, Sekretera Partiya Gel a Pakistanê, cîhan hejand.

Xatûna Bînezrî Boto, Serok Wezîra berê a Pakistanê û keça Zolfeqar Elî Boto, yek ji kesayetiyên azadîxwaz û mezin li Pakistanê bû.

Xatûna Boto jinek azadîxwaz û piştevanê mafê mirovan û alîgirê demokrasiyê bû ku piraniya jiyana xwe di vê rêbazê de derbaz kiribû.

Terora xatûna Boto, derbeyek mezin bû li ser bizava azadîxwazî a gelê Pakistanê û bêşik nebûna wê dê li ser pêvajoya demokratîzekirina civaka Pakistanê bandora nerênî hebe.

Yekîtiya Jinên Demokrat ên Kurdistana Îranê, terora xatûna Boto, sembola dxemokrasî û azadîxwaziya gelê Pakistanê û Sekretera Partiya Gel a wî welatî, ji aliyê girûpa terorîstî a "Taliban"ê mehkûm dike û ji aliyê vê saziyê ve serxweşiyê ji malbata navhatî, Partiya Gel a Pakistanê (PPP) û hemû xebatkarên rêya azadî û mafê mirovan dike û hêvî dike ku hêvî û xweziyên xatûna Bênezîr Boto, derheq Pakistanê azad û demokrat di pêşerojekî nedûr de bên cî bi cî kirin.

**Yekîtiya Jinên Demokrat ên Kurdistana Îranê**
**28.12.2007**

# PERGALA PERWERDEHIYÊ



**ADAR JIYAN**
adarjiyan@mynet.com

Îro li ser rûyê dinê pirsgirêk an jî arîşeya herî mezin pergala perwerdehiyê ye. Ango pergala perwerdehiyê ya ku ne ji bo mirov tê bikaranîn. Ev pergal, mirovan li gorî hizra serdestan û ji bo perjewendiyên wan dide bikaranîn.

Mirovên ku li gora azîneyên hêvotina zanistî têne perwerdekirin tu car hewceyî lasakerî û serşûriyên nabin. Di perwerdehiya zanistî de lasakerî nîn e. Û hewce nîn e ku tu kes xwe bişibîne kesekî/e din. Lewre her mirov dikare bi rengê xwe, bi dengê xwe, bi behre û berhemdariya xwe, bi xislet û taybetiyên xwe derkeve qada jiyanê û hest û ramana xwe derbibîre. Ango kesên ku li gora pergala hovotineke zanistî pêne perwerdekirin tenê dişibine xwe. A rast, kesayetiya takekes û xisletên mirov ên resen û xweser jî her gav bi vî awayî pêk tên û pêşve diçin.

Pergala perwerdehiya zanistî, naşibe pergala perwerdehiya dûgelên paşverû û civakên paşmayî. Îro li gelek deverên dinê perwerdehiya hin welatan gelekî dûrî rêbaz û azîneyên zansitê ye. Perwerdehiya dûgelên kevneperest, ji bo ku tevê hemwelatiyên xwe wekî yektîp bigihîne û wan bişibine hev û din, hemûyan di hundirê şablonekê de didewisîne. Pêşî wan bêvîn û bêgiyan dihêle. Û wan di nava diranê pergala çewsîner de diesirîne. Belê perwerdehiya zanistî bervajî wê netewe, nîjad, ol, ziman, çand, rewşa aborî û her wekî din dab û nêrîtên mirovan li ber çavan digire. Mirovan li gora van peytandinan perwerde dike û digihîne.

Di şêwaza perwerdehiya zanistî de çewsandin, qedexekirin û pest û kotek qet nîn e. Heta di perwerdehiya zanistî de perwerdekarên çapker û qedexeker tu car nayên wezîfedarkirin. Ji bo kesên ku bikaribin perwerdehiyeke zanistî pêk bînin, carekê divê ku ew bi xwe di pergala perwerdehiyeke zanistî re derbas bûbin. Ji bo wê jî hewcetî bi bîrdozeke têkûz, berpêbûyîneke mirovî û feraseteke gerdûnî heye.

Her çend ku perwerdehî gellek têgîn û kirûyên berfireh di xwe de dihewîne jî dîsa divê ku em hinekî li ser pirsgirêkên perwerdehiyê rawestin û çend arîşeyên wê bînin zimên. Berî wê jî divê em perwerdehiya paşverû û perwerdehiya zanistî rûberî hev û din bikin. Her çend ku navê perwerdehiyê bi ser ketibe jî, a rast li welatên paşverû yên ku ji aliyê pergalên nişadperest ve têne birêvenbirin, hewrik û firtika perwerdehiya zanistî jî nîn e. Îcar mirov nema dizane ji ku dest pê bike û kîjan çewtî û xeletiyên perwerdehiya van welatan hilde dest. Ji ber ku li van welatan pergal; nemaze jî pergala perwerdehiyê ji serî heta binî bi çewtî, xeletî û sepanên neyînî hatiye rapêçandin, mirov nikare aliyê baş û xerab ji hev û din veqetîne. Heta mirov ji bo peytandina pirsgirêkên perwerdehiyê pir ditengive jî. Derbarê vê yekê de biwêjeke tirkî heye : "Ji hêştirê (deveyê) pirsîne 'gelo çima stûyê te wisa xwêl e ?' Hêştîrê bersiv daye, gotiye 'Ma gelo ku derê min rast e ku stûyê min ne xwêl be ?'" Rewşa pergala perwerdehiya dûgelên paşmayî û çewsîner jî dişibe rewşa deveyê. Tu li kîjan hêlê dinihêrî çewtî, xeletî, neqencî û neyînî jê dibare. Li van welatan, texrîbat û rûxanên ku di jiyana takekes û civakê de pêk hatine ku nayê gotin. Wisa bûye ku ev texrîbat zû bi zû nayên cebirandin jî. Belê dîsa jî divê ku ev pirsgirêk û arîşeyên perwerdehiyê bi lezgînî û veguherandineke tevayî bêne safîkirin. Hekena, ne pêkan e ku pirsgirêkên perwerdehiyê an jî civakê çareser bibin û gel û civakên dinê bi aramî û bextewariyê nasdar bibe.

Ligel her tiştî dîsa jî divê em hin pirsgirêkên perwerdehiyê him yên dinê û him jî yên welatê xwe yên berbiçav hildin dest û li ji bo çareseriya wan tê bikoşin. Li welatên dinê pirsgirêkên perwerdehiyê çi ne? Carekê li ser vê erdnîgariyê (bi çavê dûgel û zordarên dinê) tu kes wekî mirov nayê hesibandin. Li şûna berjewendiyên takekes û civakê, berjewendiyên çîna serdest û çend karsazên maldar têne raçavkirin. Her tişt ji bo wan e. Her kes di suxrevaniya wan de ye. Bi çavê hemwelatiyan li tu kesî nayê nêrtin. Berevajî wê, mirov di her warî de wekî benî (kole) û qerwaşeyan (cêriyan) têne dîtin û xebitandin. Îro hemû sazî û sazgehên perwerdehî û hîndekariyê, ne bi armanca ku mirov zana û şareza bibin; bi mebesta ku bêtir bibin qulixdar û suxrevanê dewletê û pergala ku ji bo berjewendiyên çend kesên bijarte hatiye damezrandin.

Wekî ku me li jorê jî anî zimên, sazgeh, sazî û hemû amrazên perwerdehiyê ji bo berjewendiyên çend kesan dixebitin. Pergala perwerdehiya dinê(nemaze ya pergalên serwer û desthilatdar) ya îroyîn, ji heft saliyan bigir heta heftê saliyan, dil û mêjiyê mirovan dîl digire û wan bi kesayetiyeke sosret û bêrûmet radipêçe.

*Kaniya Helbestan*

## Ez Dayîk Im



**Evîn Çîçek**

Ez dayîk im
Kê got bar sivik im?
Bin giraniya dêbûnê
Bin giraniya jinbunê
Bin giraniya rewşenbîriyê
Bin giraniya welatparêziyê
Bin giraniya ramanên kevneperest
Bi hemû hêrs û kamên xwe gav davêm
Dagirker û dijminan re
Ez qefilîm, teslîm, teslîm
Qet nabêm
Seba xwe û zarokên xwe wekheviyê dixwazim
Helbestên xêrxwaziyê dibêm, dinivîsim
Hêla ronahiyê ve dibezim
Ew zarok in
Xwedî heq in
Yek destê min
Yê din pêşa min dikşîne
Hûr in
Barê li stûyê min nabînin
Heskirina min parve nakin
Pevdiçin, şer dikin
Carnan yê gir yê piçûk wek
Şirîk, dijmin dibîne
Xwe bê kes dihesibîne
Di bin hestên tenebûnê de dimîne
Dê nikane bibe du çelet
Paşiya piştên giran
Mejiyê min ber li sarê ket
Sal bi pevçûnê, bezînê derbas bûn
Kezî qefilîn
Derdên bê derman hêdî, hêdî
bedena min de avabûn
Pirsgirêk û barên giran
Pir zû amade dikin
Bedena belavbûyî û wêran

# ŞAREZAYÊ QELEMÊ, MÎRÊ KELAMAN

Letîf Epozdemir

Ez dema ku bîçûk bûm, ji min wer e xelkên ku di bajaran de Turk û yên di gundan de jî, Kurd in. Ev xewn û zanebûna min, hetanî emrê min ê 14-15 salan jî her wiha ma.

Bê guman Zarokatiya gelek ji me, bi xeşîmî u nezanî derbas bûye. Lewra ew dem, dema zaniyarî û têgihîştinê nebû. Mebesta min, salên 60'an e. Bê şik ji wan salan û wêdatir, jiyan yekser zehmettir bûye. Ez wisan texmîn dikim.

Gund.... Ew gundê şahidê zarokiya min, ew gundê şirîn û delal ku ez her niha jî bêriya wê dikim. Çay dermanê nexweş û nesazan, Şêx Zîmrê, ebe û pîrika me hemûyan. Ne doktor û ne xestexane, ne îlac û ne jî derman. Lê bi bar û piştîyan, kul u derdên dinyayê li ser pol û milan. Xem û keser mîna bûn heval li gel jiyanê.

**Xalê Cemîl** ku wexta rastî qolçî û cendirmeyan dihat, ji tirsa qotiya xwe ya titûnê vala dikire erdê ku xwe ji destê wan , xilas bike.

**"Bîzîm koyde, nîzam var întîzam**
**Qereqol var îkî dûkan."**

Ne tené **Xalê Cemîl**, lê piraniya gundiyan, hebûna qereqol û dikanan, wek nîşana şarezahî û şaristaniyê dizanîn. Yanî ji wan wer e ciyê ku qereqol li wê be, medeniyet jî li wê heye. Dukan jî, wargehek şaristanî bû li gora gundiyan. Lewra, van her du tiştan nîzam u întîzamê jî, dianîn. Ew ciyê ku nîzam û întîzam jî li wê hebû, ne qabîle ku bêdadî û niheqî û şaşî li wê çê bin. Wiha bû raya gundiyan.

Lê dema ku qolçî û cendirme yan jî tehsîldar û memûrên dewletê, pêşna wan nedihat, **Xalê Cemîl** xwe davêt ser banê xwe yê ber mizgeftê û qotiya xwe a titûnê jî ciyê xew kirinê, der dixist û cigareyek pê dixist. Jêre digot:

**" Wextê seher / Titûna zer/ Qelûn li ber / Agir li ser / Her nefesek / Pênsed keser."**

**Xalê Cemîl**, qelem nas nekir di jîyana xwe de, lê ew, Mîrê kelaman bû. Roh û hesta wî, wekî şaîr û hozanvana bû. Eger nasiyar û şarezayê qelemê jî bûya, xwedê dizane ka wê, çi alimek jê derketa. Bi hostayî kelîmeyan radikir govendê û mebesta xwe bi wan kelîmeyên reqqas dida der. Pêken û henekçiyê her gundekê hene. Yê gundê me jî, **Xalê Cemîl** bû.

Belê.. Şarezabûna qelemê û hostayên ziman.

Ziman ku nîştiman û wargehê dil e, ziman ku mala ramanê ye, ziman ku hevwelatiyê bîr û baweriyan, hevrêyê eşq û evîniyan e. Mirov xewnên here baş bi ziman, raman û xeyalên xwe dibîne. Eşq û evîniyên bijare, ew in ku bi zimanê dayîkan hatine himatê. Pêş hemû tiştî, bi zimanê mirov tişt têne bîra mirov. Paşî ew kelîme û axaftinên me pêra di serê me de, têne wergerandin û axaftina bi zimanê biyanî , wisan tê pêş.

Şarezabûna qelemê di gel zimanê mirov tamek şirîn û delal, li xwe dipêçe. Her çend jîr û zana jî bî, dema ku te zimanê xwe ji bîr kir, bizane ku tu nîv mirovî. Lewre ye ku dibêjin **her lîsanek însanek**. Yanî piştî zimanê xwe, mirov çiqas zimana bizanibe û bi kar bîne, ewqas baş e. Dema ku mirov xwe bi bedewiya qelemê bide naskirin û ji qelemê hez bike, wî wextî qonaxek nû dest pê dike di jiyana mirov de.

Di jiyana miletan de gellek caran şûr û qelem ji hev cuda ketîne. Xasima jiyana kurdan, bi van xalan, bi van deman pir û tejî ye. Dema ku qelem nebû, şûr dikeve şûna wî, lê ku qelem gavek pêştir be ji şûr û mertalan, jiyana Milet hêsatir û azatir e. Wê demê jana gel jî kêmtir e.

Qelem, erê qelem, yanî bi devoka nûjen: Pênûs. Gelo di destê kê de be, şareza ew e, tu bêjî Na? Nexêr na. Kes hene ku ji qelema wan derman dibare. Kes heye ku ji qelema wan, jehir dibare. Qelema baş, pergalek e di rêya azadbûyînê de. Ew dil û êsîrê me jî û her wiha şagirtê destan e. Qelema şaş, şêt û evdalek e li ser rêya serfiraziyê..

Mejî, fermanderê kiryaran, hukimdarê bedena mirov, serdarê jiyanê.

Dema ku fikir û helwesta mirov xirap be û çavê mirov li xirapkariyek be, pêre mejî fermanê dide ku mirov xirabiyê bike, zirarê bide dor û tirafê xwe. Eger tiştek di dilê mirov de negere û mejiyê mirov qerarê encama wî tiştî nede, tu qewmînek nayê holê. Fermanderê hemû kiryaran, yên baş û yên nebaş, bê guman mejiyê mirov e.

Şarezabûn, ew taca zêrîn a bê emsal..

Mezintirîn çekê dunyayê ye zanabûn "

**aqil, tacek zêrîn e, lê , li serê her kesek nîne".** (gotina pêşiyan). Şarezayî yanî aqilmendî, zanayî û bîrewerî. Eger mirov şareza nebe, ne qabîl e ku mirov bûyer û pirsiyaran şirove bike. Kesên aqilmend, şêwirmendê civatê ne, pêşengên jiyanê ne.

Zanabûn , yanî şarezayî kilîda astengan e. Kêşeyên mezin, bi aqilê giran çareser dibin. Lewra dibêjin: **" aqilê sivik, barê giran".** Ew kevirên ku şêt û dîn, davêjine binê bîrê, bi aqil dertînin ji birê. Nezanîn û cehalet malbata hemû êş û zehmetan e. Nezanîn, sebebê bindestî û rebeniyê ye. Zanîn e ku rêya jiyanê xweş û mirov dilşad dike.

Kelam, yan peyvik, gotin, bêje, we her kîjan bivê, çek u sîlaha destê kesên şareza ne.Çekên di daw û delingê mirovên zana de, kelam in. Gotinek ku bi pîvan u mîzan, wergere û here ciyê xwe bigre, hinek caran hêjayê sed berik u gulleyan. Kelameke ciyê xwe girtî, dewletan hildıweşîne. Mirovên şareza bi kelamên xwe ên bijartî, raqîbên xwe binketî dixin. Ew bi soz û kelaman, li wan didin, wan şerpeze dikin. Kesên nezan ku di turê wan de kelîmeyên bargirtî tune, reben û qelsin li hemberî gengeşe û gengeşeyên jiyanê.

Lewraye ku dibêjin: **" birîna xencerê tê girtin, lê ya xeberê nayê girtin. "** Mirovên şareza, bi peyvik û kelaman, hinek caran fermana nevanên xwe radikin. Kelamên ku ji aliyê kesên şareza ve têne xerc kirin weke top û tifengan e. **" Ne esil tuncik û terêz e, esil erkan û rêz e".**



Kesên ku şareza ne, serwet û samana wan, kelîme û aqil e. Kelîme, çek û hacetên axaftinê ne. Kesên ku lefezaniyê û berbezeytiyê dikin, kesên geveze û bi guftogo, bê guman ew jî, xwediyê xezîneya kelîman e. Lê gotinên wan ku ji wan kelîmeyan peyda bûne, pûç û belaş in. Kelam û kelîmeyên mirovê şareza jî, hevrîşîm û qumaş in. **"ne bi rengê titûnê û ne jî, bi qerefetê mirovan, nexape".**

Mîré kelaman ew kes in ku di gotar û qiseyên xwe de bi camêrî, kelîmeyên xwe rêz dikin û di nivîsarên xwe de, kelamên wan, hertim sererastkirî ne. Hest, ji kaniya dilan, kelîme jî xezîneya mejiyan der dibin. Mirovê şareza guh didin dilê xwe û paşî, xerc dikin kelamê xwe. Beredahî û ne li cî, kelamên xwe navêje kesé şareza. Her kelîmeyek wî mînayê singek yan jî dîwarek e. Kesê lefezan û geveze, ne wisan mînanî kesên şareza, bi hizir û sebat e. Ew bê hisab e, her çi were ser zimanê wî, dibêje. Şareza di axaftina xwe de, bi kelamên xwe, xaniya çê dike û bi gotinên xwe qesra, ava dike. Şareza pêşrevê aşîtî û hezê ye. Dilê wî teng nîne, kulzik û bi xerez nîne. Şareza diltenik e. Bi wijdan û merhemet e.Tu carî ji kesê zana û bîrewer xirapî peyda nabe. Lewra ew bê zirar e.

Helbete şarezayê qelemê, mîrê kelaman e.

Kesê şareza, qelema xwe li gel kelamên jîr û lewend dike heval. **"Hûr dibêje, lê kûr dibêje".** Şûrê kesê şareza qelem e. Tifenga wî qelem, berikên wî kelam in. Ew mînanî serdarek yan jî Mîrek, kelam û kelîmeyên xwe îdare dike û wan diparêze. Mîrê kelaman, xaniyê xwe li ser kelîmeyan ava dikin. Şarezayê qelemê jî, jiyanê bi qelema xwe îdare dikin. Lê her şarezayek, nikare mîrayetiyê bike. Her mîrekê re, jê re, şarezayî hewce ye. Mîrîtî, ne karê nezana ye. Kesên ku ji zayînê ve, şareza têne dunyayê, ji wan re dibêjin: **Mîrza**. Ev kelîme, remza siyanet û berketin û rêz girtinê ye. **Mîrza**. Ew peyva bedew ew kelîmeya bijarte..

Şarezayê qelemê, hizir dike, ramyar e, difikire û paşî fikarên xwe, dîtin û ramanên xwe, bi hostayî radixe ser meyzerê. Lê jê re kelamên xurt û bedew lazim in. Sedem ku ew bi lef û gefan naxweze serê tu kesî biêşîne. Dixwaze ku bi kurtî mebesta xwe bîne ziman û zêde kelamên xwe, bêhûde xerc neke. Sermiyanê xwe ku ew jî, kelîme û kelam in, badilhewa navêje. Şarezayê qelemê, meram û mebesta xwe, bi usûlek **"hindik, rindik"** tîne ziman**.** Ew baş dizane ku **gotina dawiyê, xurtê kelamê ye**.

**"Hûr û kûr û dûr."** Ev e, xasiyetê şarezayê qelemê.

Kesên kelamfiroş, nehiz û nevîn in. Mirovê şareza, kelamfiroş nine. Ew zêde na peyive, lê kelam û qalên pûç û vala jî nake. Galegal û nalenal, ne karê kesên zana ye. Zirt û fort, li ba şareza peyda nabin. Ew xwe dernaxe mezac û bazaran, bi aqilê xwe fir nade. Nefis biçûk û xweşbîn e şareza, zar şirînî û rûkenî tu carî ji rû û devê mirovê şareza kêm nabe. Ew dizane ku qelema xwe li ser çi bûyerê bilîzîne. Qelem kevana wî, kelam jî tîrê wî ne.

Şarezayê qelemê, di bin barek giran daye. Lewra, karê wî, nivîsandin e. Ew her tim bi qelema xwe mebesta xwe dike bergek dîrokî. Gotin difre, lê nivîsandin dimîne. Ew di her rûpelek de, xîmê dîrokeke windayî datîne. Şarezayê qelemê, baş dizane ku gelo ev bela ji kîve tê. Lewra ,bi hewar û fîxan e. **"ne nan e, ne dan e, ne şîv û ne taştê. Wey rebiyo hevqas derd û bela ji kîve tê".** Ev e, sitran û nalîna gelê wî.

Ew bi xwe baş dizane sedemê derd û kulan. Gellek caran bi ronahiya xwe mal û menzelê jiyanê ronî dike. Lê dawî li tengasî û çetnahiyan ku neyê, barê şarezayê qelemê girantir dibe. Ew kelîme û kelamên xwe, bi rekbarî li pey hev davêje, bi şev û roj dikşîne heyf û wax, ku nexweş nemre û bibe sax. Mîrê kelaman e ew, bi kelamên xwe, dax dike dilê neyara.

Şarezayê qelemê, dujminê derd û elemê..
Kurdistananu.org. psk.net

## Şeva Jidayîkbûna Şehîd Dr. Qasimlo Ji Aliyê Evîndarên Rêbaza Wî Li Hewlêrê Hate Pîrozkirin

Seet 19'ê êvariya roja 21.12.2007'an, bi armanca bibîranîna şeva yekem a Çile, şeva jidayîkbûna Dr. Qasimloyê Şehîd û bilindragirtina bîranîna wî wekî yek ji kesayetiyên herî mezin û navdar ên dîroka tevgera rizgarîxwaz a neteweya Kurd li bajarê Hewlêrê, rê û resmeke hêja û berifreh bi beşdariya zêdetirî 100 kes ji endam û tagirên PDK Îranê û nûnerên partî û rêxistinên siyasî ên Kurdistanê û komek kesayetiyan hate lidarxistin. Di destpêka rê û resmê de **Fexredîn Hisam Mukrî**, yek ji endamên Desteya Amadekar a rê û resmê bixêrhatinkirina mêvan û beşdaran kir û piştre axavtinek pêşkêş kir.

Dûre **Seyîd Kemal Îbrahîmî**, şareza di warê dîrokê de basek derbarê Şeva Yelda û felsefeya hebûna vê şevê û çawaniya hatina vê deb û kevneşopiyê û rengvedana wê di nava çand û kultura Kurdewarî de pêşkêş kir ku bala beşdaran bo aliyê xwe rakişand.

Her wiha **Mihemedsalih Qadirî**, endamê Komîteya Navendî a PDK Îranê, gotarek di bin navê Şeva Yelda di xwedîka dîrokê de ji beşdaran re pêşkêş kir.

Di doma rê û resmê de peyama Yekîtiya Şoreşvanên Kurdistanê û Partiya Azadiya Kurdistanê bi boneya Şeva Yelda, şeva jidayîkbûna Dr. Qasimlo hatin xwendin.

Di cejna pîrozkirina jidayîkbûna Dr. Qasimloyê rêber de **Rostem Cehangîrî**, endamê Komîteya Navendî û Berpirsiyarê Pêwendiyên vê partiyê li Hewlêrê tevî bixêrhatinkirina mêvanan, bal kişande ser kesayetiya Dr. Qasimlo û bandora wî di tevgera siyasî ya Kurdan û partiyên siyasî ên Kurdistanê, nemaze di PDK Îranê de.

Di rê û resmê de **Dr. Ferhad Pîrbal**, nivîskar û rewşenbîrê Kurd axavtinek kir û qala çend serpêhatiyên xwe bi Şehîd Dr. Qasimlo re kir û di axavtina xwe de got ku gellek tiştan ji Şehîd Dr. Qasimlo fêr bûye.

Piştre **Viyan Qadirî** pexşanek bi navê ***'Tu Nehatî Ey Rêber'*** pêşkêş kir.

Dawiya şahiya pîrozkirina roja jidayîkbûna Dr. Qasimlo bi govend û dîlana beşdaran bi dawî hat.







Hêjayî gotinê ye ku desteya amadekar a wê rê û resmêpêkhatibû ji:

Komîteya PDK Îranê – Xwendekarên Hewlêrê

Yekîtiya Ciwanên Demokrat ên Kurdistana Îranê – Komîteya Hewlêrê

Yekîtiya Xwendekarên Demokra ên Kurdistana Îranê – Komîteya Hewlêrê

Dr. Ebdulrehman Qasimlo di Şeva yekem a Çileya Zivistanê anku di Şeva Yeldaya 1309 (1930) li bajarê Urmiyê tê dinê. Piştî şehîdkirina wî, evîndar û rêvîngên rêbaza wî ya demokratîk her sal vê şevê bi cejn û şahiyan pîroz dikin.

# Wezareta Çandê: Fîlmên Yilmaz Guney Têk Çûn

Mebûsê DTP'ê yê Şirnexê Habîp Kaplan ji Wezareta Çandê pirta "Çi bi fîlmên Yilmaz Guney hatin?" kiribû. Wezareta Çandê bi nivîskî bersiv da û got: "Fîlmên ku ji wezareta karên hundir hatiye girtin ji ber mercên xirab ên depo û veşartinê têk çûn."

Kaplan, di rojeva Komîsyona Butçe û Planê ji Wezareta Çandê pirsa "Di dema Derbeya 12'ê Rezberê de dest danîn ser 105 filmên Yilmaz Guney. Çi bi serê wan de hat?" kiribû û wezaretê niha bi awayeke nivîskî bersiv da û got; "Fîlmên Yilmaz Guney ku hê jî di arşîva me de ne kopyaya fîlmên ku Wezareta Çandê girtine û ji bo ji ber çavan re derbas bikin dane



sînemageran e. Negatîfên fîlman li ber destê me nîn in. Kopyayeke wan a di sînemayan bê nîşandayîn li ber dest hene. Kopyaya fîlman ji ber rewşa xirab a depoyê û mihafizekirina wan xira bûne."

**28 fîlmên Guney**

Aslanlarin Donuşu, Arkadaş, Aci, Bana Kurşun Îşlemez, Bin Defa Olurum, Çifte Yurekli, Canli Hedef, Baba, Çirkin ve Cesur, Çirkin Kral, Duzen, Eşkiya Celladıi, Eşrefpaşali, Endişe, Hudutlarin Kanunu, Îzin, Korkusuzlar, Kozanoglu, Kizilirmak ve Karakoyun, Kovboy Ali, Piyade Osman, Silah ve Kanun, Suru, Şeytan Kayalari, Toros Kartali, Umutsuzlar, Yedi Belali Adam, Yedi Dağin Aslani.

agiri

**Rojnameya panzdehrojî ya siyasî, çandî û giştî**
**Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne**

**http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/index.php**
**Navenda bingehîn ya xebata Agirî li Kurdistanê ye.**
**Navnîşana derveyî welat:** AFK B.P. 102- 75623 Paris CEDEX 13 –FRANCE

**E - Mail:**
**agiri2003@hotmail.com**
**agiri2003@googlemail.com**



# Rays: "Rejîma Îranê Divê Mehandina Uraniyûmê Bisekinîne"



Wezîra Karê Derve ya Amerîkayê, Kondolîza Rays di hevpeyvîna bi rojnameya Dî Sayt a Almanyayê de got: Rapora Ewlehî netewî ya Amerîkayê tekez li ser wê çendê dike ku Rejîma Îranê xwedî bernameyek nepenî ya silahên navikî ye, progranek ku rejîma Tehranê tim înkara wê kiriye û niha jî pesn û terîfa vê raporê dike.

Wê got: Rapor wê yekê nade zanîn ku Rejîma Îranê programên xwe sekinandine, ji ber ku dibêje rejîmê di sê qonaxan de bo çêkirina bombeyê gav hilgirtine. Gava yekem ku li ji bo çêkirina bombeya Etom e, seninandiye. Gava duyem jî ku mehandina Uraniyûmê ye, bi lezgînî di hale encamê de ye. Gava Sêyem jî ku pêwendî bi çêkirina mûşekên dûravêj ve heye di destûra karê rejîmê de ye.

Rays herweha got: Xala herî balkêş di raporê de ev e ku programa çêkirina bombeyê ku rejîma Tehranê li sala 2003'ê ve sekinandî ye, aqibet gihîştiye kuderê.

Wê herwea got rejîma Îranê divêt dev ji mehandina Uraniyûmê berde. Çunku merem û armanca bingehîn ya hemû biryarnameyên Konseya Ewlekar sekinandina vê programê ye.

# Bavê 95 Zarokan, Tevî 6 Zarokên Xwe Hate Kuştin



Li gor agahiyên malpera Avesta, Hecî Garisê Xelef ji dayîkbûyê sala 1957'ê Zayînî ku wekî Hecko dihate naskirin û niştecihê Girzerike bû ku dikeve başûrê Çiyayê Şengalê, roja 22.12.2007'an ligel 6 kurên xwe ji aliyê grûpekî terorîstî ve hate kuştin. Her wiha 2 kurên wî bi giranî birîndar bûn. Di nava kuştiyan de jî 2 zarok hebûn. Di êrîşê de terorîstan kincên eskeran li xwe kiribûn. Êrîş li gundê Hecko pêk hat.

Me berî niha di Agirî de nûçeyek li ser Hecko weşandibû ku di sala 1974'ê de cara yekemîn bavê wî jinek jêre anîbû, lê ji ber wê ku ew jin ne bi dilê wî bû, wî di heman rojê de jinek din ji xwe re anîbû û di yek roj de du caran bû zava.

Piştre hejmara wan jinan bû 9. Yek çûye ser dilovaniya xwe, yek berda ye, 7 jin ligel wî de mabûn. Wî li mala xwe dibistanek bi navê Newroz vekiribû.

# Lêpirsînek Nû Derheq Baydemir De



Şaredarê Amedê, Osman Baydemir ji bo ku vexwandina Festîvala Çand û Hunerê bi kurdî jî nivîsand, dîsan jêre doz hate vekirin.

Serdozgerîya dewletê ya Amedê derbarê şaredar Osman Baydemir de dest bi lêpirsînê kir û ji bo wî 3 sal û şeş meh cezayê zîndanê xwest.

Hêjayê gotinê ye ku Baydemir di vexwendina festîvala Çand û Hunerê de li gel çend zimanên din bi kurdî jî nivîsandibû û serdozgerê Amedê jî vexwandibû Festîvalê, lewra ew ceza jê re hat xwestin.

# Kurdek Cara Sêyemîn E Dibe Endamê Parlamentoya Rûsiyayê



Li gor agahiyên ajansên Nûçeyan, Kurdekî Gurcistanê ji bajarê Tiflîsê ji bo cara sêyemîn bû endamê Parlamentoya Rûsiyayê.

Kurdê Gurcistanî yê bi navê **Zalimxan Motosobov**, li ser lîsteya Partiya Rûs a Yekgirtî (Partiya Potîn) hate hilbijartin.

Zalimxan Motosobov sala 1959'ê zayînî li bajarê Tiflîsa serbajarê Gurcistanê hatiye dinê.

Navhatî endazyar û xwediyê fabrîkaya çêkirina boriyên petrolê ye. Ev fabrîka yek ji mezintirîn fabrîkayên boriyên petrolê ye.

Zalimxan Motosobov ragihand ku ew hez dike Kurdistanê ziyaret bike û amade ye di xurtkirina pêwendiyên di navbera Kurdistan û Rûsyayê de rolek baş bilîze.

# Dahata Nefta Îranê Di Sala 2007'an De 70 Milyar Dolar E



Li midehê yanzde mehên borî yên sala 2007'an de, Îranê bayê 52 milyar dolar neft firotiye. Hucetula Xenîmîferd Cihgirê Wezareta Neft a Îranê di hevdîtina xwe bi çend kovarên wî welatî re eşkere kir ku rejîma Îranê di sala 2007'an de rojane du milyon û çar sed hezar bermîl neft weke hinarte şandiye. Herweha got ku dahata giştî ya firotina nefta Îranê heya dawiya sala 2007'an dê bigihîje Heftê milyar dolaran.

Hêjayî gotinê ye ku Îran çaremîn welatê hinêrer yê neftê ye û sala 2006'an jî bayê 60 milyar dolaran neft firotiye, lê bi sedema bilindbûna nirxa neftê kariye dahatek zêdetir bidest bixe.

# Hesenî: "Jinên Bêhicab Divêt Bimrin"



Xulamriza Hesenî, nûnerê Xamineyî û pêşnimêjê Şîiyên bajarê Urmiyê, derheqî wan jinên ku balê nadin "hicab" (lixwekirin)a bi zorî û neçarî û wê naparêzin, got:''Ez nizanim ku çawan e piştî borîna 28 sal bi ser Şoreşa Îslamî de, jinên bêhicab hêj zindî ne". Herweha got:''Ew jinên ku xwe ji parastina hicab û lixwe kirina kincên Îslamî diparêzin, divêt bi xwe, hevser û bavê wan jî bimrin".

Destbiser û dozvekirina li dijî jinên ku di ferhenga rejîmê de bi ''bêhicab" tên naskirin, ji destpêka sala par û demsala germê de dest pê kiriye û heya niha jî didome. Zext û givaşên han di hin qonaxan de xurt û carna jî lawaz bûye. Lê bi berhevdan bi gerrên berê herweha didome.

Îsal jî hevdem li gel destpêka demsala sirr û seqemê de, hin tiştên din jî bi vê yekê zêde bûne û çekmeyên dirêj jî di lîsteya reş ya bi navê ''Bêhicabiyê"de cih girtine.